Bidestveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 179
20'ê Adara 2012'an
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

Sal nû dibe û bihar derfetek e bo lênêrînek nû û nûbûnê. Erd nefesek kûr dikêşe û xweza pê dikene û rûpelek din ji bo nûjenkirina jiyan û hezkirinê hildide. Li bereberê bihara nû de em pîrozbahiyên herî bi xeml pêşkêşî we dikin.
Heviya me eve ku sala nû bibe sala aştî û bicîhatina hêvî armancên gelê me.
Desteya Weşana Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û giştî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî

Mistefa Hicrî:

## Roja temenê vê rejîmê ber bi avabûnê ve diçe



Seba hatina serê sala nû, rêûresmek bi coş li êvariya roja Duşemiyê 29'ê Reşemê li binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ, bi beşdariya sekreterê giştî ê PDKÎ, û endamên rêberî û kadr û pêşmergeyan û malbatên wan û mêhvanan birîve çû. Beşa yekemîn ya vê rêûresmê bi sirûda netewî ya Ey Reqîb û ragirtina deqeyekê bêdengî bona rêzgirtina ji riha pak ya şehîdên Kurdistanê dest pêkir.
Piştî vê birêz Mistef Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ peyama newroziya xwe bi vê boneyê rû li civatên xelkê Kurdistanê pêşkêş kir, ku deqê vê peyamê li rûpela sê ya Agirî de hatiye weşandin. Piştî peyama navbirî çend sirûdên şoreşgerî, sitranên fulklorî, helbest û pexşan hatin pêşkêş kirin.

Piştî vê jî li derveyî holê, rêzdar Mistefa Hicrî di gel rêzdar Mesûd Tek sekreterê giştî yê Partiya Sosyalîst a Kurdistan - Turkiye û xûşke Awat Hesenzade hevjîna şehîd û xûşke Nesrîn Mehmûd hevjîna şehîd agirê newroza 1391'an hilkirin, û govend û dîlana Kurdî beşa dawiya vê cejnê bû.

### Sergotar

## Biharek dijwar, lê geş

Selîm Zencîrî

Wa Bihar e. Biharek ku îro rojê zêdetir ji her demekê xincî nûkirina sirûştê, wateyek siyasî jî peyda kiriye. Biharek ku li çend welatên erebî de dest pê kir û pêsîra çend pîre dîktatorên deverê girt û avêtine ciheké ku hêjayî wan e. Biharek ku hêj berdewame li guherînkarî û nûjeniyê û tav û lerz xistiye dilê dîktatoran. Biharek ku her roj çilûyên zêdetir dide û me dilxweş û hêvîdar dike bi havîn, payîz û zivistana xwe.
Wa Newroz e. Salek din jî bi ser temenê biyome rejîmê re derbas bû. Salek ku tejî bû ji giranî, belengazî, cinayet, bêmafî, çavsorî, gef, girtin, îşkence û îdaman derheq gelên Îranê. Hevdem salek jî bû tejî ji rûreşî, şermezarî, dorpêç û mehkûmiyetan bo rejîma Îranê di asta navxweyî û navnetewî de.
Salek ku pitir ji her demekê rûçikê rastîne rejîmê ji gelên Îranê û cîhaniyan re eşkere bû. Nimûneya herî zîndî jî ew baykota bihêz û seranserî li dor binav hilbijartina meclîsê li Reşemeyê de bû ku selimand rejîmê nemaze êdî li nav band û baskên xwe de jî rewatî nemaye.

Bi vê nêrînê ve sala pêşiya me renge dijwar û taltir be, lê salek hestiyar û çarenivîsaz e. Lewma erkê me jî girantir dike ku dibe bi nefesek nûtir, bi cesûrî û îradeyek qahîmtir, bi yekêtî û yekdengiyek bihêztir, bi hêvî û geşbîniyek zêdetir ve dest bidin hev bo hevxebatî li dijî rejîmê û pêşerojek baştir bo tev aliyan.

Li Sûriyê komkujî berdewam e û azadî nêzîk R: 4

Panoramaya girîngtirîn bûyerên salê R: 6

2'mîn Konferansa Ciwanên Kurd bidawî hat R:8

Karesatek mirovhejîn û serkevtinek dîrokî R: 9

# Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDK Îranê bi boneya 8'ê Mars, roja cîhanî a jinan

**Jin û keçên Kurdistanê!**
**Jinên Îranê!**
Roja we, roja cîhanî a jinan ji we pîroz be. Hewce ye ku li vê rojê de hevdem li gel pîrozbahiya bi boneya roja cîhanî a jinan ji we jin û keçên welatê me, hêvîxwazê misogerbûna maf û azadiyên we ku maf û azadiyên destpêkîn ên mirovan in, bin û li gel we de pîrozbahiya roja cîhanî a jinan ji hemû ew mirovên azadîxwaz û yeksanîxwaz bikin ku li xem û kovana bicîhatina yeksanî û wekheviya jin û mêran li nav civak û malbatê de ne.

Roja cîhanî a jinan weke rojeke sembolîk û hêma bo yadkirin û pêdagirtin ji xebata jinan û tekoşîna wan li pêxem gehîştina bi yeksanî û wekheviyek hêjayî mirov bûye û heye û li vê rojê de bo ber bi pêşde çûna pêvajoya dîrokê û geşekirina civakê û pêşkevtina civakî, siyasî û aborî li seranserê cîhanê de bîr û hizra yeksanîxwazî û rêzgirtina mirovî ji jinan xurt û berfireh dibe. Roja 8'ê Marsê dibe bi xala lihevhatina seranserê mirovahiyê li cîhanê de bona wê ku hemû kes û beş û hemû kom û komele û gurûpeke mirovahiyê, bi yek hizr û nêrîn ve bi vê baweriyê bigihîjin ku mirov li tu biyavekê de çi li warê regezî, çi li warê cinsî û çi li hemû biyavên din ve xwediyê tu serdestbûn û meziniyek bi ser yên din de ninin û ciyawazîdanan û ferq divê li her ast û her warekê de bihê redkirin û nehiştin.
Jin û keçên Îran û Kurdistanê!

Hûn li welatekê de û li bin desthilata sîstemekê de dijîn ku serbarê hemû stem û çewsandinekê ku li dijî mirovan birêve dibe, jin li ber çawan gelek sivik û bêbuha û bênirx e û li warê bîr û hizrî û li warê siyaset, yasa û mafên medenî ve dixwaze jinan bike kole û bi alava berdestê mêran.
Lewre xebata we li dijî vê rejîmê û li vî welatî de dijwartir û riya pêşberî we jî pirr asteng û zehmettir e û hevdem li gel vê de erkê şoreşvan, têkoşer û azadîxwazên mêr jî qurstir dibe, dibe ku piştewan, hevxebat û hevgavên we bin.
Jinên kurd!

Hûn li vê rojê de anku li roja cîhanî a jinan de hevdem li gel jinên cîhanê erxayîn û xatircemtir ji caran dibin ku bi xebat û tekoşînê dikarin bi mafên xwe û bi yeksaniya hêjayî mirov bigihîjin. Çunku dibînin jinên cîhanê li welatên pêşketî û azad de bi xebat û tekoşîna xwe û bi piştewanî û hevkariya mêrên yeksanîxwaz, dane selimandin ku dawî bi efsane û bîrtengiyên sedsalên borî hatiye û wusa nîşan dane ku niha jî hin bîrên paşvero yên wusa belav dikin ku jin li surûşt û zat û bingeha xwe de kêmtir û siviktir e, lewma dibe bindestê mêran bin.
Hûn jinên kurd bi ezmûn wergirtin ji xebat û tekoşînê û hewildana jinên xebatkar û serketî ên cîhanê, herwek li berê de selimandine dikarin tevlî ezmûn û xebata xwe û kesên têkoşr ên berî xwe bikin û bi xwe rêkxistin û hevahengî kirina xwe rêça jinên têkoşer û mafxwazên kurd bidomînin û hevdem li gel xebata netewî û azadîxwazeya wan bo gihîştin bi azadiyê hewil dane û hezîne û têçû li vê riyê de dane. Çunku gihîştin bi maf û parastina buhayan nirxa xwe heye û jinên kurd selimandine ku bo armanca xwe amade ne nirxa xwe bidin.
Herweha selimandine ku nek ji jinên cîhanê kêmtir ninin, belkî jinên wusa têde hilketine ku dibe weke sembol û nîşana xebata jinan çav ji wan bihê


Kerîm Perwîzî, endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ

kirin û ne bi qise û durûşm, belkî li kiryar û piraktîk de nîşan dane ku li refa herî pêşîn a dijwartirîn qonax û şêwazên xebatê de milbimilê mêran bo gihîştina bi mafên însanî xebitîne.
Jin û keçên kurdistanê!

Li xebata dûr û dirêje we bo gihîştina bi azadî û yeksaniyê, PDK Îranê her li destpêka avabûna xwe ve bi dirêjahiya nizîk bi 7 dehsal ji xebata mafxwazaneya xwe, piştewan, hevkar û handerê jinên kurdistanê bo selmandina yeksaniya xwe li nav malbat, civak û li refên xebatê de bûye û li ser destê Pêşewayê nemir, avakerê hizba demokrat, rêxistina taybet bi jinan pêk anîye û rêberên wê hizbê bi hemû şiyan û îmkanatan ve alîkar û piştewanê jinan bona xwerêxistin li pêxema gihîştin bi mafên xwe bûne û PDK Îranê li vê rojê de serbarê pîrozbahiya roja cîhanî a jinan ji we dubare li ser pirensîpên girîng û bingehîn ên li pêxema misogerbûna azadî, wekhevî û yeksanî li nav mirovan de tekez dike û carek din vê waneya girîng çendbare dike:
Demokrat dijî her terze çewsandina mirov bi destê mirov e û bawerek tewaw bi wekheviya mafên jin û mêran li nav malbat û civakê de heye.
Serkevtin ji bo hemû azadîxwazan û bi taybet bo xebata yeksanîxwaziya jinan
Bi hêviya hiloşîna sîstemên çimisankar û ciyawazîdaner li seranserê cîhanê de
Bi hêviya avabûna civak û sîstemek parêzerê maf û kerameta mirovan li Îranê de

**PDK Îran Deftera Siyasî**
**8'ê Marsa 2012'an**

## Se'îd Êmamî: Wezareta Îtilaatê Ehmed Xumeynî kuşt!




**Di salvegera mirina Ehmed Xumeynî, kurê avakerê rejîma Komara Îslamî a Îranê de malpera Ceres eşkere kir ku di Îtirafên cîgirê ewlehiya berê yê Wezareta Îtilatê de hatiye ku Ehmed Xumeynî ji aliyê Wezareta navbirî ve hatiye kuştin.**

Se'îd Îmamî piştî kuştina hejmarek ji siyasetvan û nivîskarên rexnegire rejîma Îranê, digel hejmarek ji berpirsên Wezareta Îtila'tê hatin girtin. Di vê dosyayê de ku bi kuştinên rêzokî hat nasîn, Wezareta navbiri bi dest hebûna hijmarek ji berpirsên wezareta xwe îtiraf kir û da zanîn ku ew, kesên "xweser"bûne.

Seîd Îmamî jî yek ji wan kesan bû ku hat girtin, lê ji zîndanê rizgar nebû û hat kuştin, lê berpirsyarên rejîmê ragihandin ku wî bi vexwarina dermanê serşokê xwe kuştiye!

## Ehmed Şehîd rapora xwe a duyemîn li dor mafên mirovan di Îranê de weşand



### Ehmed Şehîd: "Di girtîgehên Îranê de işkence û destdirêjiyên cinsî hene"

**Nûçegihenê taybetî ê NY, roja 22'yê Reşemê rapora xwe ya duyemîn derheq rewşa mafê mirovan di Îranê de pêşkêşî civata mafê mirov a NY kir.**

Ehmed Şehîd di civata mafê mirov de di despêkê de got ku desthilata Îranê xwe ji hevkarîkirina bi wî re diparêze û eva jî nîgeraniyên derheq pêpes kirina berfireh ya mafên mirovan li Îranê de xurttir û zêdetir dike.
Navhatî îşare bi rewşa xirab a girtîgehên rejîmê dike û dide zanîn ku pêla destbiseriyê berfirehtir bûye û her niha 42 rojnamevan di Îranê de girtî ne. Herweha piştî hilbijartina sala 2009'an, bi kêmî 150 rojnamevan ji Îranê rewiyane û nêzîk 50 bilavok ku piraniya van yên xwendekarî ne hatine daxistin.

# Mistefa Hicrî: Êdî ew dem derbas bû ku neteweyek, girupek yan ayînek bixwaze ku hukmê dîktatoriya xwe bi ser ên din de bisepîne, û wan hemwelatiyê pile du bihesibîne

**Hemwelatiyên rêzdar!**
Seba cejna newrozê û nûbûna salê ez pîrozbahiyên herî germ ji we dikim û hêvîxwaziim ku sala 1391'an salek pirr ji destkevtên siyasî ji bo gelê Kuird û hemû azdîxwazên Îranê be.

Newroz pîroz be li malbatên serfiraze şehîdan, û tev wan malbatên xweştevî ku emegdar in bi rê û şopa şehîdên xwe, pîroz be ji tev girtiyên siyasî ku bi tawana mafxwazî û bîrûboçûnên cuda niha di girtîgehên rejîma Îranê de derbas dikin. Morala wan her bilind û leşê wan her sax be. Herweha ez pîrozbahiyê dikim li hemû kadr û pêşmerge û endam û alîgirên PDKÎ.
Mixabin vê carê jî em di demekê de pê didanne sala nû de ku komara îslamî û eqliyeta pawanxwaz a wê her niha jî per û baskê xwe bi ser tewaya civaka me de kêşaye. Bi hezaran lawên Kurd û ên neteweyên din ên Îranê bi sedema bîr û baweriya siyasî li bendîxaneyan de ne, û rojane tên îdamkirin, û tenê tawana wan ew e ku wek girupa deshilatdar bîr nakin û daxwaza azadiyê dikin.

**Xûşk û birayên hêja!**
Newroz li cem me wataya nûbûna xwezayê û azadî û rizgariyê vergirtiye. Azadî û rizgarî li destê zivistana sar û tarî ber bi şînkatî û xwezaya bi xemil, û germa û ronahiya roja buharê. Lê mixabin welatê me zêdetir ji sê dehsalan e ku li jêr hukmê taqmek xwenrêjên paşvemayî de ye ku ne ji wateya azadiyê tê gihîştine û ne jî tava guhertinan kariye cemeda mejiyê hişk ê wan bihelîne.
Mafê mirovan, mafê neteweyên Îranê û yek ji wan kurdan, xweşî û bextewerî, şadî û ciwanî, azadî û demokrasî li cem wan gellek cihê tirsê ne, û ew bi tewaya hêz û şiyana xwe dijî wan azadiyan disekinin.

Ehmed şehîd reporterê taybetî ê rêkxirawa neteweyên yekbûyî, li dawî rapora xwe de derheq kurdan dibêje: " li gorî raporan heya 31'ê Oktobera 2011'an pazde tekoşerên Kurd bi tawanên wek kiryarên dijî ewlehiya netewî, yan fesadên ser rûyê erdê yan casûsî, berbirûyê hukmê îdamê bûne. Ew herweha berbirûyê ferq û cudahiyên civakî aborî û zextên bi armanca destbiserde girtina milk û malê wan, bêkarkirina, û bertengkirina civakî û kulturî û mafê zimanî bûne.

Her li vê derheqê de Ehmed Şehîd bas ji kuştara bi kom ya kasibkaran ên Kurd dike, ku li cihên sînorî de dijîn... li yasayên Îranê de karê wan kasibkaran cezayê çend meh girtîgeh yan destbiserdegirtina tiştên wan heye, lê li ser sînor teqe li wan kasibkaran tê kirin û bi vî awayî bi dehan kasibkar û hespên wan li salê de tên kuştin yan jî birîndar dibin".
Evne mînakên herî kûşke ne, ji cînayetên rejîmê ku heta bawerî bi yasayên xwe jî tuneye, û rehmê bi heywanên kasibkaran jî nakin.

**Xûşk û birayên rêzdar!**
Lê serbarê wan hemû zextên ku rejîma Îranê li ser xelkê Îranê birêve dibe, li gorî nîşaneyan weha dixuye ku temenê vê rejîma li gorî sedsala navîn ber bi avabûnê ve diçe.
Sala 1390 sala pêkhatina guhertinan di beşek ji welatên herêmê de bû, li vê salê de beşek ji gelên belengaz ji destê dîktatoran ew jî bi fîdakariya xortên xwe, xwe rizgar kirin. Xelkê Misr, Tunis, Lîbî li refa wan welatan de bûn, û tê çavnihêr kirin ku xelkê Sûriye jî li sala nû de bigîjin armancên xwe.

Her li sala 2012'an de qurbanî û belengaziya xelkê Sûdanê bi dawî hat û ew li referandomekê de ku deng dane serbixweyiyê, ji Sûdanê cuda bûn û gehîştin serbixweyiyê. Ew bûyer ji bo gelên jêr destê dîktatoran, nîşaneya vê ne ku sala borî salek pirr ji deskewt li Rojhilata Navîn û beşek ji Afrîqayê bû. Pêlên wan gohertinan bandora ne rasterast bi awayê nerênî û li ser morala xelkê Îranê bi awayê erênî hebûye. Lewra rejîma Îranê bi tewaya hêza xwe bi dijîxelkê serhildêr li Sûriyê alîkariya rejîma Sûriyê dike, bo evê ku wan ji rûxanê rizgar bike, sala 1390 yek ji salên herî tal li temenê vê rejîmê de bûye:

Pîlanên vê rejîmê bo pêkhatina teror û nearamiyê li her dereke cîhanê zêdetir ji her salekê eşkere bû, bi taybetî pîlana terora balyozê Erebistana Seûdî li Amerîka de ku şermezariye mezin ji rejîma Îranê re pêk anî.
Bandorên gemaroyên navdewletî bo ser rejîmê ewsal xwe nîşan dan. Buhayê diravê Îranê li heyamê salekê de li hember dolarê Amerîka de, zêdetir ji %40 hate xwar. Berhema neftê bi awayek berbiçav hatiye xwar.
Rêkxirawa opêk ragehandiye ku berhema nefta Îranê li Fêwriyeya ewsal a zayînî de li gorî meha berî wê, rojane 37 hezar bermîl kêm bûye.
"IAEI" jî di wan dawiyane de ragehandiye ku li şeş mehên bihêt de, tê çavnihêrkirin ku hinardeya nefta Îranê heya yek milyon bermîl kêm bibe. Ji bilî vê yekê rejîma Îranê di cihê vê nefta ku dişîne derve, bi egera gemaroyan li gel kêşeyan berbirû bûye.

Li vê salê de xelkê Îranê zêdetir ji berê komara Îslamî nasîn, bi awayekê ku li bi nav hilbijartina parlementoya vê carê de ku li 12'ê Reşemê birêve çû, heta reformxwaz jî ku hêzek berçav bûn bo piştevaniya rejîmê, lê vê carê beşdarî nekirin. Ew tê vê wateyê ku rejîm êdî ji aliyê wan kesan ve jî nahê hezkirin.
Lewra hijmara xelkê beşdar li hilbijartinê de gellek kêmtir ji hilbijaretinên pêşîn de bû.
Ragehandinên rejîmê jî bas ji beşdariya zêdetir ji %60 kirin ku ew jî tê wateya beşdariyek kêm li çav hilbijartinên pêşîn.

Eşkerebûna gendeliyên bê mînak ên rejîmê, û pêdagiriya wan li ser siyasetên şikestxwarî alîkarek bihêz bûn ji bo jidestdana rewayiya rejîmê.
Di rastî de ew kêşeyên ku hatin baskirin, pêvajoyek in ku ji mêjve ye dest pêkiriye, lê li sala borî de zêdetir hatin eşkere kirin û bê guman li sala 1391'an de ew kêşe wê zêdetir li ser yek kom bibin û rejîmê ber bi kendalê jinavçûnê ve bibin. Jiber ku ne tenê rejîm kirîzan çareser nake belku bixwe kirîzan diafirîne û wê di nav kirêzên destçêkiriyê xwe de wê nuqim be.
Lewra em dikarin bêjin ku li sala nû de newroza me wê pîroztir be, û em jî çavnihêriya deskewtên siyasî ên zêdetir ji bo gelê xwe û bileztirbûna hiloşîna rejîmê dikin.



**Xelkê xebatkar ê Kurdistanê!**
Bi berhevdana vê rewşê û çavnihêriyên me, erkek girantir jî dikeve ser milên me, ew jî hewildan e ji bo yekdengî û yekrîzîyê, bona vê ku li asta civatgeha navnetewî de û li hember neyarên navxweyî de me giraniyek pitir hebe, û bi hewl û tekoşîna hemû aliyekê û bi bernameyek pêşkevtî ve, em dibe bikarin ku li nav wan guhertinan de ku têne pêş, mafên herî zêde ji bo neteweya xwe bidestve bînin.
Li vê derheqê de rêkxirawên siyasî ên Kurd erkek girantir dikeve ser milên wan, ku em hêvîdarinher hemû jî bi dûr ji berjewendiyên teng, li rastaya berjewendiya neteweya xwe de kar bikin. Guman têde nine ku hewlên micid û berdewam ji bo nehêştina wan astengiyên ku bûne kêşe li ser riya nêzîkbûna bi yektir û ji yektir têgihîştinê, ji emrazên herî sereke ên gihîştina bi vê armancê wate yekbûne ne.
Bi hebûna bernameyek weha ji aliyê partiyên siyasî ve, û bi piştevaniya berdewam ya xelkê Kurdistanê em dikarin çavnihêrê pêşerojek geş ji bo neteweya xwe bin.

PDKÎ di vê rastayê de pêngavan hildigre û amade ye ku erkên nîştimanî û neteweyî ên xwe bi berpirsatiyek tewaw ve birêve bibe.
Ez ji vê derfetê mifahê werdigrim û tevî pîrozkirina cejna newrozê ji hemwelatiyên xwe li Îranê, di destpêka sala nû de peyama aştî, tolerans, û wekheviyê ji wan re dişînim. Li roja 2'ê Rêbendanê de min ew peyam ji wan re şand û dîsan ducarî dikim ku gelê kurd xwazyarê jiyana bi hevre û wekheviyê di gel netewên din ên Îranê ye, ku eva jî nîşaneya têgihîtina wan ji guhertinan û siyaseta serdemiyane ye. Em hemû bi hevre dikarin ji bo hiloşandina rejîma Îranê xebatê bikin, bihevre hikumetek demokratîk ava bikin, bi awayekê ku Îran ya me hemiyan be û me hemiyan mefê beramber têde hebe. Wateya vê peyamê ew e ku êdî ew dem derbas bû ku neteweyek, girupek yan ayînek bixwaze ku hukmê dîktatoriya xwe bi ser ên din de bisepîne, û wan hemwelatiyê pile du bihesibîne. Ne Kurd vê awayê deshilatê qebûl dike, ne serdem vê yekê dixwaze, ne jî çarçoveya Îranê weha tê parastin.

Eva peyamek e ji bo hemû wan aliyên ku dixwazin bi hêceta parastina tewawiyeta erzî a Îranê her terze mafxwaziyeke siyasî bi tawana cudahîxwaziya neteweyên Îranê, yek ji wan neteweya Kurd tepeser bikin.
Hemwelatiyên rêzdar, xûşk û birayên beşdar li rêûresma newrozê, carek din newroja we pîroz be û xebata we berdewam be.
Li sala nû de ji we hemiyan re saxî û selamtî û rizgarî û pêşerojek geş hêvî dikim.



# Li Sûriyê komkujî berdewam e û azadî nêzîk

*Di vê navberê de çavnihêriyek bêhtir ji hêzên kurdî yên opozîsyona Sûriyê tê kirin ku yekîtî û tebahiya xwe xurttir bikin û hevdeng derkevin qada siaysî a Sûriyê*



Azad Kurdî

Şoreşa li Sûriya salek derbas kir û ket nava sala duyemîn. Rewşa hundirê Sûriyê û komkujiya ji aliyê rejîma Beşar Esed ve ber bi aloziyeke bi tirs ve diçe. Her diçe hejmara kuştî, birîndar û girtiyan bêhtir dibe. Salek xebat û berxwendan li hemberî hikûmetek dîktator ku bi darê zorê rojên dawiya temendê desthilatdariya xwe derbas dike. Ligel hewldan û hişyarîdan û gefên welatên mezin ên cîhanê derbarê komkujiya hevwelatiyên sivîl ûş nerazî ji aliyê rejîma Sûriyê, lê hêj tu gavek pratîkî ji aliyê hêzên meizn ên cîhanê nehatiye avêtin û gelên Sûriyê bi xwe li xwe xwedî derketine û dixwazin bi dana nirxên giran jî be azadiyê bînin welatê xwe û dawî li sîstema dîktatorî bînin.

Herçiqas Rûsya ji aliyekê û Neteweyên Yekbûyî û Komkara Erebî ji aliyekî din û ji hêla din ve jî eniya rojava bi serkêşiya Amerîka bi armanca bidawîanîna karên tundûtîjiyê û pêşîgirtin ji komkujiya hevwelatiyên sivîl, herwiha dîtina çareseriyeke siyasî ji bo kirîza li Sûriyê di hewldanan de ne, lê êrîşên artêş û hêzên ewlekariyê yên Sûriyê bi ser çend bajaran de berdewam in û hejmara kuştiyan ji 7 hezar kesî derbas bû.

Rejîma Sûriyê bi piştgermiya Rûsyam Çîn û Îranê berdewam e lis er komkujiyê. Her diçe rojeva navxweyê Sûriyê dijwartir dibe. Encûmena Niştimanî ya Sûrî mezintirîn û giringtirîn hêza oposîsyonê ya Sûriyê ye û Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) duyemîn civata giring û ciddî a opozîsyona Sûriyê ne, nakokî û dijheviyên destpêkê di navbera hêzên Ereb bi hemû hêlên fikrî û herwiha hêzêzn Kurdî ji aliyekî din kêmtir bûye. Lê di vê rewşa ciddî ku Sûriye pê re derbas dibe, car din netifaqî û dijhevî û parçebûn di nav van her du civatên bi bandor de tê dîtin. Bi taybet pirsgirêka ku niha di navbera PYD û ENKS de heye û hêj bê çareserî maye. Heta niha hêzên ereb bi hev re û hêzên Kurdî yên opozîsyonê jî bi tevahî ne li ser hev in û ji ber vê yekê ew nikarin hevkariyeke baş bi hev re bikin û xebata azadîxwaziya gelên Sûriyê bi başî kanalîze bikin.

Di vê navberê de çavnihêriyek bêhtir ji hêzên kurdî yên opozîsyona Sûriyê tê kirin, yekîtî û tebahiya xwe xurttir bikin û hevdeng derkevin qada siaysî a Sûriyê. Opozîsyona kurdî li Sûriyê hêj hemû nakokî û dijheviyên navbera xwe çareser nekirine. Lê ji berê pirr bêhtir çûne pêş. Lê têr nake, çavnihêrî ji vê yekê zêdetir in, ji ber ku diviya ew azmûnên welatên din ên herêmê li ber çavan derbas bikin.

Pêkhatina kongreya dostên Sûriyê li welatê Tûnisê di daziya meha borî û rojeva civînê û hevdîtinan moral û hêviyên xelkê Sûriyê bêhtir û geştir kir. Xala giring a wê civînê tekezkirin li ser çespandin û bicihkirina mafên Kurdan di destûra nû a Sûriyê de bû û çareserkirina pirsa Kurd li wî welatî bû.

Aliyek balkêş a şoreşa gelên Sûriyê ev e ku ev dema salekê ye ku xelkê Sûriyê dixwaze bi awayekî aştiyane û demokratîk di çarçoveya xwepêşandan û mezên sivîl de şoreşa azadîxwaziya xwe ser bixin, lê hêzên leşkerî yên hikûmeta Sûriyê her di kuştina hemwelatiyan de berdewam in û êdî rojeva medyayên cîhanê herî zêde bûye pirsên navxweyê yên Sûriyê û komkujiya hikûmeta wî welatî. Heta reaksyon û tevgerên hikûmeta Beşar Esed bi vî awayî bimeşin û bersiva xwestekên aştiyane û demokratîk ên gelên Sûriyê bi tundûtûjî û kuştinê bê dan, xelk mukirtir dibe û roja azadiyê nêzîk û rûxandina sîstema dêktatoriya Beesê li Sûriyê kintir dikin.

# Niqurçk

## Bêt Bêt? Tenê Mehmûd bila bêt



Ceifer Mubeşirniya

Mehmûdê kulgewrî, "biborin" Serkomarê rejîma Îranê 6 mehan berî niha got ku heya dawiya sala 1390'î, ez tiştekê bi navê bêkariyê di welat de nahêlim.

Kirso! îro newroz û yekemîn roja sala nû ye. Sala ku te bêkarî têde nedihişt qediya, lê nirxa bêkariyê jî di Îranê 14, 15, 18, 27, 34, wella nizanim carna basê çil û milan ji sedî jî dikin!! xweda xêr bike her hejmarekê bînî ziman, di amarên Îranê de cih dibin, çimku cihê direw û mala dîna ye!! Lê ez bi wan hejmaran çiyan bawer nakim, her kes ji xwe re tiştekê dibêje. Lê ezê ji rewşa xelkê xwe binêrim û bipirsim: Erê gelo mirovek di Îranê de tenê di mehekê de 15 rojan kar bike û heqdestê xwe werbigre! ji birsan dê bireve? Yan ji birsan dê xwe bixeniqîne? Yan dê ji birsan endamên laşê xwe bifroşe? Yan dê ji birsan waaaaaaaaaaaay wê qebehetê! dê zarokên xwe ên sêvî bifiroşeeeee???!!!
Kuro Mehmûd, hey çilmo! min çi ji serokkomariya te nine, tu ji destpêkê de rengê çi nediday, kes nabêje eva di şeinê Serokkomarekê de nine, tenê şermê ji rêdîna xwe a ku hêdî hêdî mîna gîskê gurrî boz û sipî dibe bike! Reben! tenê carekê here seferekê û direwekê neke ka bizane dê çi bibe.
Mehmûd vê carê jî di sefera xwe a Elburzê de got: Ger astengiyan ji min re pêk neînin, heya dawiya gerra serokkomariya min diqede "ku tenê du sal mane", ez tiştek bi navê bêakriyê di welat de nahêlim. Ew jî di Elburza ku her 100 kes 45 jê bêkar in. Hehoooo, walla te remezan bi rewşek ciwan girt, vêca dora şeşikane.



## Bêt bêt? Kesê mafê hatinê tune Newroz e û tenê bila mehmûd bêt

Mehmûd di axaftinek xwe de got ku îmamê Zeman "Mehdî" hikûmeta me birêve dibe.
Raste, ji mêj e mezinan ev yek gotiye ku "aşê nezanan xwedê digêre".
Ez bawerim Mehmûdê min tu di nava nezanan de jî her pêskoyî û pirr ji vê yekî jê nezantir û bê aqiltirî. Dema ku kes newêre xwe ji aşê te bide û bi hesab "Mehdî" ji te re digêre, ew nîşana çiye? Başe çima dema ku birsîtî welat dagirtiye, tu gaziya wî dikî û didî destê wî?
Walla dibêjin wê decal bê bi kerê xwe re û tu jî dê bidî dû re, vêca tu birsî dibî yan na, çavên te derdikevin, ne xema wî ye!
Mehmûd, pajo kerê bira û bibe here bike hakimê tehranê, wellah ji pîre hêstirê niha yê hakim baştire. Wella te dewlet wa kiriye dohîna zirepûngê ku bi 7 Mehdiyan jî ser û ber nabe, hekî kerê decal serederiyê lê bike, vêca belaya xwe Mehdî veke!






# Astengiyên Demokrasiyê di Îranê de

**Beşa dawiyê**



**Ebdulla Hicab**

## Mafên bingehîn ên netewan

Mafê neteweyan di warê diyarîkirina qedera xwe de, yek ji mafên herî bingehîn ên destnîşankirî di daxuyaniya cîhanî a Mafên Mirovan de ye.

Lê bi sedema hebûna ew hizr û ramana ku di pêwendî li gel wateyên netewe, pirsa netewî û mafên netewan di herêma Rojhilata Navîn de cihê xwe girtiye. Mafê diyarîkirina çarenivîs, mafê beşdarîkirina di biryardanên siyasî û geşepêdana çanda netewî, tenê mafê hikûmetên hakim û netewên ku di bazneyên desthilatê de cih digrin nine. Yekîneyên xincî neteweya Turk li Turkiye, Fars li Îranê û Ereb di Sûriyê de û (Îraq) pêgehek berbiçav a siyasî, çandî û netewî tuninin.

Jiber vê yekê wateya netewe û mafên netewayetî bi awayek ku di edebiyata siyasî a zal de hatiye bikaranîn, tenê ji bo neteweyên pêkîner ên hikûmeta nawendî bikar tê. Pêvajoya pêkanîna netewe, mafên bingehîn ên netewan û heta geşekirina demokrasiyê li gor têgihîştina deshilatê, pêvajoya berhevdana girûpên derveyî bazneya desthilatê li gel çand û buhayên hakim ji aliyê nawendê ve tê birêvebirin.

HerÇend fikriyeta hakim "qewmên Îranî" weke girûpên pêkhêner ên "Netewa Îranê" dihesibîn e, lê di kiryarê de peyva Îran bi wateya çand, ziman, kultûr û meseba netewe yan qewma Fars tê bikaranîn. Bi hemen awayî di Turkiyê de peyva netewe tenê ji bo netewa Turk û xelkek ku çand û buhayên Turkzimanan qebûl bikin tê bikaranîn. Li Îraq û Sûriyê de jî têgihîştina netewa serdest ji wateya netewe bi vî awayî ye. Her çend Îraq ji sala 1971'an pêde şûnasa ne Erebbûna Kurdan di destûra bingehîn a xwe de pejirandiye, lê ji bo guhertina fikriyet û têgihîştina han tu kiryarek micid nehatiye encamdan.

**Neteweya bê dewlet**

Netewên bêdewlet ji wan vahidan pêk hatine ku Antonî Îsmît ew bi qewmiyetên kevnar bi nav dike. Hikûmetên hakim bo mînak Îran, şûnasa netewî a wan netewan li berçav nagre û dewletên hakim ew weke girûpên qewmî binav dike bi bê eva ku pêwendiya siyasî û şûnasa van netewan li berçav bigre.

Bandora guhertinên civakî û abûrî a çend sedsalên borî li ser pêkhatina şûnasên nû, serketina dewletan li hember şûnasxwaziya wan netewan de bi awayekî micid biriye jêr pirsiyar. Eva bi vê wateyê ye ku qewmiyeta kevnar di vê civakê de her ku diçe bi awayek eşkeretir xwe derdixe û girîngiya wê xwe nîşan dide. Ev şûnasa nû li hember şûnasa sepandî de, rewşekê pêk tîne ku astengiyên kûr ji bo desthilat û fikriyeta dewletî çê dike.

**Rêçareyên derbasbûn ji astengiyan**

yên derveyî desthilatê yan "Pirîfirî" bi wateya derveyî nawendê, weke netewan, kêmaniyên olî, çandî, zimanî û texên dervayî bazineya deshilatê ên civakê, rolek girîng di pêvajoya demokrasiyê de dilîzin. Jiber ku hêzên han bi ragirtina balansa desthilatê, girîngîdan bi qazancên du yan çend aliyane, parvekirina desthilatê û pêşîgirtin ji kombûna wê di nawendê, şûnasên cuda li cihê bikaranîna pîvanekê ji bo ciyawazî û newekheviyê weke alavek bo wekhevbûn bikar tînin.

Hevdem ev ragirtina balansa desthilatê, wekheviyek hiqûqî pêk tîne ku ji bo geşekirina abûrî û pêngav avêtin di rasteya jinavbirina hejarî, kêmkirina teesub û xorafatên girûpî, geşekirina hişmendî, qebûlkirina şûnasên cuda û rêzgirtin ji wan, hewce ye.

Yekem pêngava ku bo beşdarkirina girûpên derveyî bazneya desthilatê di îdareya welat de hewce ye, hebûna pênaseyek nû ji wateya "Netewa Îranê" û rohnkirina sînorên yasayî û hiqûqî a wan girûpan ne ku xwediyê şûnasek cuda û xweser in. Pêngava din pejirandin û rêzgirtin ji wan şûnasan e ji riya pêkanîna rewşek ji bo geşekirina wan û pêşvebirina geşeya şûnasa hevbeş û nû a netewî li ser bingeha maf û buhayên wekhev. Geşekirina şûnasa han dikare rolek bingehîn di pêşvebirina demokrasiyê di asta welat û pêkanîna aştî û hevkarîyê di asta navnetewî di herêmê de bilîze. Lê hewcehiya berhevkirina şûnasek hevbeş,pêkanîna derfetên piraktîk ji bo beşdarkirina netewan bi awayek pirr micid di desthilatê de, û hevdem hewildan bo bihêzkirina nawendên giştgîr ên netewî di seranserê welat de ye.

Di vê rewşê de çareseriya pirsgirêkên ku di encama daxwazên netewî û retkirina wan daxwazan ji aliyê hakimiyetê ve pêk hatine, pêwendiyek rasterast li gel rohnkirina wate û lihevhatina li ser pêgeha yasayî û hiqûqî a "Netewan" û "Girûpên qewmî" heye.

Demokrasî take modela siyasî a serkevtî, û sîstema ne nawendî a îdareya herêman, take riya durust e ku li ser bingeha deng û xwesta pirraniya xelkê ye, ku di herêmên cur bi cur de dikarin di biryardanên siyasî di asta seranserî de beşdar bin.

Qebûlkirina bingehên demokrasiyê weke beşdarkirina xelkê, û berhevkirina mafên wekhev bo hemwelatiyan li warê çareseriya pirsên netewî û qewmî di herêmê de hewce ye, û hem dikare alîgirên demokrasiyê ji netewên din ên Îranê weke Kurd, Belûç, Azerî, Ereb, Turkmen, Ereb û Farsan li dor progiramek hevbeşa siyasî ji bo demokratîzekirina welat kom bike.

Di vê pêvajoyê de hewceye ku hemû aliyan pêgeha netewan weke vahidên ku xwediyê mafên beramber in bi fermî nas bikin û mafên wekhev ên wan li dor biryarnameyek civakî û siyasî ya nû biselimînin. Bo mînak rohn bikin ku Kurdan çi şûnasek hene û pêka şûnasa wan dikarin çi maf di çarçoveya welatê Îranê hebin.

Her girûp û civakek divê di pêşeroja Îranê de ev maf hebe ku bixwe nav û şûnasa xwe pênase bike. Qebûlkirina şûnasan û guhertina sîstema perwerde bi mebesta perwerdekirina bi zimanê neteweyên cur bi cur alîkariya pêşveçûna pêvajoya demokrasiyê dike. Herweha jinavbirina teesubên mesebî, zimanî û çandî di pênasekirina şûnasa netewî a xelkê Îranê de mijarek bingehîn e.

Tiştek ku bûye astengî bo hevkariya netewên Îranê û hêzên guhertinxwaz ên Îranê, têgihîştinek cuda a hinek hêzên karîger ên Îranê ji mijarên baskirî di pêvajoya xebat bo guhertina sîstema niha a Îranê ye. Bandorên nigatîv ên têgihîştinên cuda di demekê de xwe nîşan dide ku aliyên pêkhêner û tevgerên siyasî û civakî ên piştî dehka 30'î û çend salan pêde, hêla jî nekarîne formûlek hevbeş ji bo çareseriya pirsên netewî hebin. Berfirehbûna dîtingeh û kiryaran vê guman çê dike ku di pêşeroja Îranê de heta bo desthilatdariya hêzên demokrat, dîsan pirensîpên demokrasiyê ji bo hinek girûpên taybetî bê liberçavgirtin. Mînaka vê basê welatê Turkiye ye ku her çend hinek usûlên demokratîk di wî welatî de tên bikaranîn, lê ew usûlên demokratîk ji bo hevwelatiyên Kurd tu car nehatiye liberçavgirtin.

Seba derbasbûn ji dîktatoriyê û rêxweşkirina bo geşeya sîstem û civakek demokratîk, amadekirina destûra bingehînek nû û layîk û li ser bingeha usûlên demokrasiyê hewce ye. Di Destûra han de divê cudahiyên çandî, zimanî, netewî û mesebî bê berçavgirtin. Hevdem dabeşkirina adilane a desthilat û abûriyê, rêzgirtina hember ji bo hemû şûnasan, zindîkirina çanda netewan, dabeşkirina nû a welat li ser bingeha cuxrafiyaya xelk û dîroka herêman, bihêzkirina demokrasiyê di wan herêman de û beşdarkirina wan di biryardanên siyasî ên welat pirr hewce ye.

Wekheviya yasayî û beşdarîkirinên siyasî di kiryar de, pêşî ji dîktatoriyê digre û azadî û beramberiya siyasî, mafê diyarîkirina çarenivîsê û herweha mafên takekesiyê berhev dike. Di rewşek weha de rê ji bo aştî û geşeya civakê xweş dibe û pirs û nakokî di navbera girûpên fikrî, siyasî û qewmî de digihîje astek pirr lawaz.

Dema vê yekê hatiye ku bo pêşerojek baştir, alîgirên demokrasî û mafê mirov riya gotûbêjê peyda bikin, kîne û kerban ji nav bibin, hesasiyetan bikin bi îtifaq, îtifaqan bikin bi dostayetî û dostayetiyê bikne hevgirtin.

# Panoramaya girîngtirîn bûyerên salê



A: Şehab Xalidî



**12'ê Hezîrana 2011'an:**
Hilbijartinên parlemanî di Turkiyê de birêve çûn. Di vê hilbijartinê de nêzîk %90 a xelkê, beşdarî di hilbijartinê de kirin, û nûnerên dilxwaze xwe hilbijartin.
Di hibijartina vê carê de Kurdan bi bidestveanîna 36 kursiyan karîn ku serkevtinek berbiçav li gorî hilbijartinên pêşîn bi dest bixin.

**16'ê Hezîrana sala 2011'an**: Kamyar û Areş Elayî, du pizîşkên Kurd yên bajarê Kirmaşanê ku li sala 2008'an de bi tometa hewldan bo hiloşandina rejîmê hatibûn hepsîkirin, xelata Şêvra Cîhanî ya Saxlemiyê seba hewl û têkoşîn bo çareseriya nexweşiya Îdzê bi dest xistin.
Eva di demekê de bû ku Areş hêla di girtîgeha Êvînê de bû û sê sal ji heyamê hukmê hepsa wî mabû.

**17'ê hezîrana 2011'an:** Profesor Xemo ji ber nexweşiya penceşêra qirikê, li gundê Avşînê yê Yerîvanê koça dawî kiriye. Zimanzanê navdar Maksîmê Xemo ji sala 1995'an heta mirina xwe li Enstîtoya Rojhilatzaniyê ya Akademîya Ermenîstanê, wekî Serokê Beşa Kurdzaniyê xebitîye. Profesor Maksîmê Xemo nêzîkî 120 pirtûk û gotarên zanîstî nivîsîne û berhemên wî bi Kurdî, Rusî û Ermenî hatine çap kirin.



**21'ê Tebaxa 2011'an**: Li doma êrîş û bombebarana balafirên şerker ên Turkiyê bo ser sînorên herêma Kurdistanê, 7 endamên malbatekê bûne qurbanî û herweha zerer û ziyanek madî a zaf giha rûniştiyên deverên ser sînorî û gellek kes derbider bûn.



**23'ê Tebaxa 2012'an**: Piştî vê ku xelkê nerazî li Urmiyê derheq hişikbûna Gola Urmiyê rijyane ser şeqaman, li tewrêzê jî xelêkê vî bajarî dest bi meşek nerazîbûnê bi dijî rejîma Îranê kirin. Li encama êrşî û tepeseriya xelkê nerazî li Urmiyê du kesan canê xwe ji dest da û hijmarek ji xelkê nerazî birîndar bûn.

**9'ê Çiriya Pêşîn a 2011'an:**
Siyasetmedar û kesatiyê navdar ê kurd Îsmet Şerîf Wanlî, li bajarê Lozanê di temenê 87 salî de li Swîsrayê koça dawî kir. Wanlî di salên 1940'an de têkilî bi serkirdeyên Komela Xoybûn re kir. Di sala 1956'an de "Komela Xwendekarên Kurd" li Ewropa ava kir. Profesor Wanlî di sala 1970'an de bawernama xwe ya doktorayê wergirt, bawernama wî lêkolînek li ser şoreşa başurê Kurdistanê bû. Di sala 1985an de bi hin hevalên xwe ve "Yekîtiya Huqûqzanên Kurd" li Ewropa ava kir û serokatiya vê saziyê kir. Di sala 1995'an bû Serokê Instîtyûta kurdî ji bo Lêkolîn û Zanist li Berlînê, dîsa wê salê bû endamê Parlemantoya Kurdistana başûr li derveyî Welat.



**11'ê Çiriya Pêşîn sala 2011'an**: Rêkxirawa Hemas li hemberî azadkirina Gîlad Şalît ew leşkerê Îsraîlî yê girtî
de cara yekemîn 477 dîl û piştre jî 550 dîl ku di destê Îsraîliyan de bûn. Wê demê Gîlad Şalît leşkerê Îsraîlî yekem car radestî berpirsyarêm Mîsrî li Qahirê de hatin kirin.



**20' Çiriya Pêşîna 2011'an**: Berdevkê Civata Netewî ya Lîbiyê kuştina Qezafî piştrast kir.Bi kuştina Qezafî bajarê Sirtê jî hate azad kirin û nîzama wî bi yekcarî hate hiloşandin. Berpirsyarên Şêvra netewî a Întiqalî a Lîbiyê jî li bajarê Binxazî de roja 23'ê Çiriya Pêşîn a 2011 zadiya tewaw ya Lîbiyê cejin girtin. Li 25'ê Çiriya Pêşîna de termê Moemer Qezafî û kurê wî Mo'tesem û Ebubekr Yunis Cabir wezîrê parastina dewleta Qezafî jî li cihek nediyar li li Lîbiyê de hate veşartin.

**7'ê Çiriya Pêşîn a 2011'an**:
Meşe'l Temo, yek ji xebatkarên Kurd yê dijberî hikûmeta Sûriyê, di mala xwe de li bajarê Qamîşloya Sûriyê, ji aliyê girûpek çekdar ên nenaskirî kete ber destrêjê û hat terorkirin. Meşe'l Temo berdevkê tevgera pêşeroja Kurd li Sûriyê de bû û di pêvajoya serhildana xelkê li dijî hikûmeta Sûriyê de, rolek berbiçavc hebû



**23'ê Çiriya Pêşîn a 2011'an**: Erdhejek bi pîvana 7.2 rîşter, li devera "Wan"ê li Kurdistana Turkiyê rû da, ku wêraniyek zaf li vê deverê pêk anî, û bi hezaran kesî kuştî û birîndar lê bi cih man. Vê bûyera xwezayî dilê her kurdekî êşand û her kurdek xembar kir, lewra piştî vê bûyerê Kurdan li her dereke cîhanê alîkarî ji Waniyan re şandin.



**22'ê Çiriya Paşîn a 2011'an:**
"Danielle "Mitterand", xanima yekem a berê ya Fîransayê, Seroka Binyada "Firans Lîberte" û hevjîna "Firansoa Mîterrand" Serkomarê berê yê Fîransayê koça dawî kir. "Danielle Mitterand" yek ji wan jinên xebatkar bû ku li dema şerrê duyem yê Cîhanî, di refên berxwedaniya li hember dagîrkeriyê de beşdarî kir û piştre bi xurtî dest bi karên xêrxwazî û hevkariya lêqewmiyan kir.

Hesta dilsojî û piştevanîkirin ji pirsa Kurd li hemû parçeyên Kurdistanê, "Danielle Mitterand" xiste nav dilê Kurdan de, û heta di wî warî de ew weke dayîka Kurdan dihat binavkirin. Nêzîkî û qutnebûna têkiliyên wê xatûna birêz, li gel PDK Îranê bo hemû aliyekê xuya bû, û ew weke endameke malbata PDK Îranê dihat xuyakirin.



**29'Çiriya Paşîn a 2011'an:**
Hinek kesên nerazî êrîş kirin ser Balyozxaneya Birîtanyayê li Tehranê, ku vê kiryarê mehkûmiyetên cîhanî li dû xwe re hebûn.
Barak Obama, Serokkomarê Amerîkayê ragehand ku rejîma Îranê, divêt êrîşkeran bide destê yasayê, û Koşka Sipî jî di biryarnameyekê de ew êrîş mehkûm kir. **D**îvîd Kamiron, Serokwezîrê Birîtanyayê jî ragehand ku neşiyaniya dewleta Îranê di warê parastina Balyozxaneya Birîtanyayê, cihê şermezariyê ye. **k**onseya Ewlekariya "NY"û **Y**ekîtiya Ewropayê jî êrîş bo ser Balyozxaneya Birîtanyayê mehkûm kirin. **R**ayedarên Îranê ragehandin ku ji qesta êrîşkeran haydar nebûne û hewlên Polîsan jî bo pêşgirî ji vê êrîşê bê akam maye.



**28'ê Çileya Paşîn a 2012'an:** Çar balafiren şer ên F-16 li nêzîk gundê Roboskî û Bêcuhê ser bi herêma Qilabana Şirnexê karwanek kasibkaran bombebaran kirin. Di bomberana balafirên şer de 35 kes bi awayê herî hovane hatin şehîdkirin. Ew kesane ku kasibkar bûn, dema di şevê de, ji aliyê sînorê Herêma Kurdistanê vedigeriyane gund, bûne amanca vê êrîşa balafirê ertêşa Turkiyê. Piştî vê êrîşa hovane ya balafirên Ertêşa Turkiyê, gelê Kurd li her ciheke cîhanê ku lê dijîn, bi awayên curbicur dest bi meşên berfireh kirin û ew kiryara hovane bi tundî protesto kirin. Herweha gellek partî û kesayetiyên siyasî bi derkirina daxuyaniyan ew êrîş hovane binav kirin, û daxwaza lêkolîna li ser vê bûyerê ji aliyê dewleta Turkiyê ve kirin. PDK Îranê jî yek ji wan partiyan bû ku bi tundî ew êrîş şermezar kir.

## Kuştar û qirkirina xelkê Kurdistanê siyaseta şikestxwarî a Xumênî

Daryûş

Rejîma dîktator a Xomênî her li yekemîn roja bidestve girtina deshilatê û talankirina deskevtên şoreşa gelên azadîxwaze Îranê û Kurdistanê bi taybetî ne tenê her hemû azadiyekî siyasî, Mdenî, û takekesî ji nav bir, belku rêza herî kêm jî ji mafê mirovan re nedanî, û civatgeha Îranê kire girtîgehek mezin ji bo neteweyên bindest û kêmaniyên ayînî û tewaya wan mirovên azadîxwaz ku amade nebûn bibne koleû jêr destê deshilata mirovkujên sedsalên navîn ê wîlayeta Feqîh. Girtin, îşkence, Îdam, komkujî û şikandina kerameta mirovan, diyariya herî berçav a rejîma xwesepandî û dîktatoriya Xomênî bûn ji bo gelên têhniyê azadî û demokrasiyê li Îranê bi giştî û li Kurdistanê de bitaybetî. Xelkê mafxwaze Kurdistranê ku her di destpêkêde daxwaza mafên rewaye xwe wate dabînkirina mafên netewî û bihevre jiyana aştiyane ya sercem gelên welat li çarçoveya Îranek azad û demokratîk bûn, ketne ber xezeba rejîma taze bi dshilat gihîştî. Xomênî her wê demê bi awayekî eşkere û hovane li hemberî daxwazên rewaye xelkêKurdistan de sekinî û dest bi komkujiya bêrehmane ya gelê Kurd kir û êrîşî ser Kurdistanê kir û hewdem di gel qirkirina xelkê gundan li Kurdistanê de, gemaroyek tund a siyasî û aborî xiste ser Kurdistanê.
Rejîma Xomênî her li doma tepeseriya Kurdan de li 23'ê Reşemeya sala 1361'an de êrşî kire ser xelkê mafxwaze gundên Helbê, Kwêkan, Kehrêza Şikakan û Yonis Lî, ser bi bajarê Nexedê û 40 kes ji xelkê bê berevane wan gundan ku 23 kes ji wan xelkê Kerêzeya Şikakan bi tawana Kurdbûnê kuştin û bi dehan kesên din jî ku piraniya wan jin û zarok bûn birîndar kirin.
Li encama vê êrîşa hovane ya çekdarên rejîma Xomênî de bi hezaran kesî ji xelkê bê berevan ê Kurdistanê mal û halê xwe bi cih hêlan û rû li çiya kirin. Li doma vê siyaset û pîlana rejîmê de bi sedan gundên Kurdistanê li jêr agirê gulle û top û xompareyan de bi hezaran kes ji xelkê bê berevan canê xwe ji dest dan.
Lê serbarê wan hemû zext û êrîşan Kurdistan hertim wek qelekî qahîm heya niha jî li hemverî rejîma Xomênî de berxwedaniyê dike û qet gelê Kurd li hemberî vê rejîmê de serî netewandine û bi îradeyek polayîn li hemberî xwestek û daxwaziyên xwe de nirxek zaf dane, û xebata xwe ya mafxwazane heya gihîştina bi azadiyê didomîne.

## Piştevaniya dubare a Deftera Siyasî a PDK Îranê ji Kurdên Sûriyê

Li bajarê Hewlêrê rê û resma 8'mîn salvegera bibîranîna serhildana Kurdên Sûriyê birêve çû ku têde Deftera Siyasî a PDK Îranê peyamek pêkêş kir.
Roja 13'ê Adara 2012'an, li bajarê Hewlêrê û ji aliyê Yekîtiya Hêzên Demokrat ên Kurd li Sûriyê û Dezgeha Kaweyê Rewşenbîrî, 8'mîn salvegera serhildana Kurdên Sûriyê hat bibîranîn. Di wê rê û resmê de çendîn peyamên girîng ji aliyê partî û sazî û kesayetiyên Kurd ve hatin xwandin.



Peyama PDK Îranê ji aliyê birêz Rostem Cehangîrî, Endamê Deftera Siyasî yê PDK Îranê ve hat xwandin.
Birêz "Cehangîrî" di peyama xwe de car din pêdagirî li ser piştevanî ji Kurdên Sûriyê da eyanê. Navbirî di beşek ji peyama xwe de bas ji herêma Kurdistana Îraqê kir û azadiya Kurdan di vê parçeya Kurdistanê de weke tirsek ji bo rejîma Beis a Sûriyê ji Kurdên wî welatî re da zanîn, lewma Beşar Esed 8 salan berî niha di kiryarek hovane de jehra xwe li ser Kurdan rijand û dehan kuştî û birîndar û sedan girtî paş xwe hiştin.
Di roja 12'ê Adara 2012'an de di lîzek fotalê de di navbera Kurd û Erebên Sûriyê de pevçûn çêbû û ew yek ji rejîma Beşar Esed re bû hêcetek baş ku kela dilê xwe li ser Kurdan birêje.

## Rojev



## Şanogeriyek di sê sehneyan de

A: Arîn

Vê midehê li çend welatên Rojhilata Navîn de pêşangehek ji wêne û dîmenên direwîn û nerast ji demokrasiyê hatin nîşandan ku ji qebaheteké zêdetir nebû. Sê pîredîktatorên hevalbend ên deverê li pilanek darêtî û hevdem de şanoyek bi navê hilbijartinê lîstin û di xeyala xwe de karîne wijdan û rewatiya ku jê bêparin misoger bikin.

Sehneya yekemîn a vê lîstikê li Sûriyê de hat lîstin. Welatek ku li bin cinayet û agirê topxaneyên rejîma Beis de dinalîne û bi hezaran kes kirine goriyê heza pawanxwaziya xwe. Welatek ku rejîma wê ne tenê li nav xelkê xwe de, belkî li nav piraniya welaten Erebî û rojava de nahê pejirandin û daxwaz jê hatiye kirin ku bi devberdana ji desthilatê dawiyê bi xwînrêtin û kirîzê bîne. Li rewşek weha û bi qebahetek weha re hizra referandomê ket serê nemubarek yê Esed û hejmarek ji kesên girêdayî xwe re di rewşek tam ewlehî de kişandin ser sindoqan. Referandomek ku ji alyê xelkê xebatkar û azadîxwaz ên Sûriyê û herweha Piraniya hêz û aliyên opozîsyonê ve hat baykot kirin û bi henek bi demokrasiyê hesibandin. Encam jî weke dihat çavnihêrî kirin hat ragihandin ku zêdeyî %5o a xelkê beşdar bûne û tişta ku dixwastin bi dengê zorahiya xelkê ve hat pejirandin.

Sehneya din jî li Îranê de hat lîstin. Lîstikek ku her çend sal carekê li welatê me de ji aliyê rejîma Komara Îslamî ve tê nimayîş kirin, lê tu car bi qasî vê carê zirar nedît, çunku rews û dema lîstina wê gelek hestiyar û dijwar bû û rejîm li tengasiyek mezin de dijiya û şanoya hilbijartinê û vê pêla berfireh a baykotê jî meşrûiyet û rewatiya mayî jî jê stand û bi rakirina rûbenda demokrasiyê, rûçikê rastîn ê rejîmê nîşanî hemû cîhanê da û ew çeka demokratîk û xelkî ku rejîmên weke Komara Îslamî kirine bi aleva rewatî bexşîn bi xwe û li dijî gel bikar tînin ji dest derdixin.
Lîstikek ku di seqayek tam ewlehî û bi pîlan û taktîkên cur bi cur ve birêv çû û pêka çavnihêriyan, rejîmê bi serhejmariyên direwîn xwast qasek abirû û rewatiya ji destçû ji xwe re bidest bixe, lê serketina bereya baykotê li vê rikeberiya neberamber de ew armanca rejîmê kire bulqa ser avê.
Sehneya din a vê nimayişê jî li Rûsiyê de bû. Serbarê nerazîbûnên girseyî ên xelkê, Viladimîr Potîn piştî 12 salan desthilatê, dîsan li pilanek darêtî û hilbijartinek nedemokratîk de taca serkomariyê misoger kir.

Lê berevajî îdeayên bêşermane ên her sê dîktatoran, tu pîvan û pirensîpên demokrasiyê û hilbijartinek azad li bin siya wan de nehatin berçaw girtin û li sehne bûna xelkê û nerazîbûnên wan jî li dijî rejîmên serdest, pêgeha wan rejîman li asta navnetewî de biriye jêr pirsiyarê. Hevdem birêvebirina wê qebaheta bi navê hilbijartinê nîşan ji lawazî û herifîna siyasî û exlaqî a wan rejîman e. Bi taybet li Sûriye û Îranê de ku xelkê pişt li rejîmên xwe kirine û nemumkine ku êdî ew bikarin temenê xwe dirêj bikin yan jiyê xwe garantî bikin, ji ber ku ketine serjordahiya neman û hiloşînê. Ji ber ku pêlên azadî û demokrasîxwaziyê dever dagirtiye û her carê qirika dîktatorekê digre, vê gavê dor gihaye Sûriye û Îranê û bêguman dê yên din jî bigre.

Helbet ew piştewaniya Rûsiye û Çînê ji wan cinayetkar û dîktatorên xwînmij li Sûriye û Îranê jî bêheger nine û armanc pêşîgirtina vê bahozê û paşdekişandina wê ye, lê êdî nema ew serdem û eva em dibînin serbarê ewqas bedel û hezîneyê, xelkê qehremane Sûriyê her li qada xebata li dijî rejîma Esed de ne û tu hêz û çekek nikare vîna azadîxwazî û îradeya hesinî a wan bitemirîne. Lewma ew zemîne niha li Rûsiye û Çînê de jî bi başî dixuye û êdî ew jî nikarin mîna caran hespê xwe bibezînin û neçarin yan xwe biguherînin yan jî dê bên guherandin.

# Duyemîn Konferansa Ciwanên Kurd bidawî hat

## 2'ê Rêbendanê weke deskevtek netewî bo her çar parçeyên Kurdistanê hat diyarkirin

Duyemîn Konferansa Netewî a Ciwanên her çar Parçeyên Kurdistanê li hola Pêşewa a Hewlêrê, roja pêncşemî 15'ê Adara 2012'an bi beşdariya serokê Herêma Kurdistanê, Mesûd Barzanî, Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî ê PDK Îranê û nûnerê gelek Part û aliyên siyasî dest pê kir û roja Yekşemî, 18'ê Adarê bi serkeftiyane dawî bi karê xwe anî.

Konferans bi sirûda netewî a "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî bo rêzgirtin ji cane paqije şehîdan dest pê kir. Paşan peyama Nozad Hadî, Parêzgarê hewlêrê hat xwendin. Dûre peyama Lêjneya amadekar a Konferansê ji aliyê Omîd Xuşnaw, sekreterê Yekîtiya lawên Demokrat ên Kurdistanê ve hat xwendin.
Li beşek din ji karê konferansê de Mesûd Barzanî peyamek pêşkêş kir ku îşare bi girîngiya konferansa ciwanên kurdistanê kir û hêvî xwest ku ew konferans bibe hêvênê yekgirtina beşên kurdistanê .
Herweha peyamên: Serokkomarê Îraqê, serokê Parlementoya Kurdistanê, Nûnerê hikûmeta Herêma Kurdistanê hatin pêşkêş kirin.
Bi nûneratiya hemû rêxistinên Kurdistana Îranê jî, Fuad Xakî Beygî, sekreterê Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê peyam pêşkêş kir. Nûnerên beşên din ên kurdistanê jî bi cuda peyam pêşkêş kirin.
Li beşek din a konferansê de nave wan part û aliyan hat xwendin ku peyam bo konferansê şandibûn ku PDK Îranê yek ji wan bû û herweha qefde gula rêzgirtinê jî ji aliyê Mistefa Hicrî ve pêşkêşî konferansê hat kirin.

Li konferansa han de 21 xal weke rasparde hatin pesend kirin. ji wan xalên berçav, diyarîkirina 2'ê Rêbendanê weke destkevtek netewî a her Çar Parçeyên Kurdistanê bû û hat raspardin ku di her Çar Parçeyên Kurdistanê de ew roj bihê bibîranîn.
Xalek din a konferansê pesendkirina alaya niha a Herêma Kurdistanê bû bo her Çar Parçeyên Kurdistanê. Biryare konferansa lawan her sal li beşek li kurdistanê de birêve biçe.





## 8'ê Marsê ji aliyê Yekîtiyên Jinan û Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê ve hat pîroz kirin



Bi boneya 8'ê Mars roja cîhanî ya jinan, semînarek ji aliyê Yekîtiyên Jinan û Xwendekarên Demokrat ên Kurdistna Îranê ve birêve çû.
Roja 7'ê Adara 2012'an, semînarek bi boneya 8'ê Mars roja cîhanî a jinan ji aliyê Yekîtiyên Jinan û Xwendekarên Demokrat ên Kurditysna Îranê ve bi beşdariya birêz "Hesen Şerefî" Cihgirê Sekreterê Gıtî yê PDK Îranê di hola rê û resmên PDK Îranê de birêve çû. Semînarê bi sirûda netewî a "Ey Reqîb" û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtina ji canê paqij yê şehîdên riya wekheviyê destpêkir.
Peyama Deftera Siyasî a PDK Îranê bi vê boneyê ve ji aliyê birêz "Kerîm Pervîzî" Endamê Deftera Siyasî yê PDK Îranê ve hat pêşkêş kirin.
Piştre peyama Komîteya Birêvbeberî a Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurditsana Îranê ji aliyê "Kinêr Mêhfer" ve hat xwendin.
Beşa duyem pêkhatibû ji basekê li ser cudahiya regezî (tefkîk cinsiyetî) di Îranê de, ji aliyê birêz "Keyhan Yûsifî" Sekreterê Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdiostana Îrabnê ve.
Di dawiya semînarê de birêz "Sureya Felah" di riya Skype ve basek li ser jinan û bizava jinan pêşkêş Kir.

## Zarokên Rojhilata Kurdistanê Hewlêr xistin semayê

Êwariya roja Pêncşemî, 25.12.1390ê rojî, zarokên Kurdistana Îranê ser bi nawenda Nêrgiz ji bo perwerdeya fikrî û hunerî a zarok û nûciwanên Kurdistana Îranê bona pêşwazî kirin ji Newrozê, nimayişek ciwan ji dawetên kurdî li çarçoveya şeşemîn festîvala Paytext, festîvala azadî û newroz pêşkêş kirin. Ew nimayîş li hola Family Mool" a bajarê Hewlêrê de bi hevkariya gurûpa Doq Şartêr birêve çû. Nimayîşa han ku ku li roja taybet bi çalakiyên zarokan li festîvalê de birêve çû, çendîn dawetên cuda yên deverên cuda cuda ên Kurdistana Îranê pêşkêşî amadebûyan hatin kirin. Ew çalakiya nawenda Nêrgizê ji aliyê xelkê bajarê Hewlêr û geştiyarên biyanî ve hat pêşwazî kirin.
Her li vê rojê de gurûpa zarokan li parka Şaneder û Parka Minare de berhemên hunerî ên xwe pêşkêşî amadebûyên festîvala Newrozî a bajarê Hewlêrê kirin.
6'mîn festîvala paytext, festîvala azadî û Newroz bi boneya 32'mîn salvegera wajokirina rêketinnameya dîrokî a 11'ê Adara 1970'î li navbera serkirdatiya kurd û hikûmeta wê demê ya Îraqê, herweha bi boneya 21'mîn salvegera serhildana xelkê Hewlêrê birêve diçe.
Birêvebrên festîvalê ragihandin ku yek ji armancên festîvala îsal eve ye ku gavek giring ji bo Hewlêrê bona standina navbangê paytextê geştiyarî ê sala 2014'an.



Hêjayî gotinê ye ku beşa yekem a festîvalê li 11'ê marsê ve dest pê kir û heya 20'ê marsê dirêje dikêşe. Beşa duhem jî li 21 heya 25'ê marsê birêve diçe.

# Karesatek mirovhejîn û serkevtinek dîrokî

## Hevpeyvînek bi birêz Mihemednezîf Qadirî, Endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ derheq karesata Helebcê û derbasbûna 800 Kadr û Pêşmergên PDKÎ

**H: Kurdistan**

Di kûrahiya Şîmyayî barana Helebçê de, 800 kadr û pêşmergên PDKÎ dikevin nava rewşek pir dijwar de, û ji aliyê din ve topbarana berdewam a Komara Îslamî canê wan dixe tirsê. Di daviyê de kadr û pêşmergên PDKÎ bi awayeke ne ciyê baweriyê karîn xwe ji vê rewşê derbaz bikin. Niha ku 24 sal bi ser bûyera Helebçê re derbaz dibe, bi armanca baskirina li ser vê bûyera dîrokî , Rojnameya Kurdistan gotûbêjek di gel birêz Muhemed Nezîf Qadirî, Endamê Deftera Siyasî a PDKÎ pêk anîne ku emê bela we xwendewanan bo aliyê vê gotûbêjê rakêşin.

**Kurdistan: birêz kek Mohemed Nezîf Qadirî, 24 sal bi ser bûyera derbaz bûna 800 kadr û pêşmergên PDKÎ di kûrahiya karesata Helebcê de derbas bû, hûn wê demê yek ji berpirsên Hizbê di pêwendî digel derbaz kirina wan kadr û pêşmergan bûyî, hûn dikarin di despêkê de bas ji çavanî û armanca wî şerî bikin?**

Di rojên davî a meha Reşemeya sala 1366'an, di dirêjiya şerê malwêranker a 8 salî ku di navbera du rejîmên dîktator û Kevnepereste Îran û Îraqê de çê bibû, û bû sedema kuştin û birîndar bûna hijmareke zaf ji xelkê her du welatan û herweha kawil û wêranbûna bajar û bajarok û gundên sînorî di navbera her du welatan de, Rejîma Komara Îslamî heyamê du salan bû ku bi awayek eşkere û nihênî di hewla avakirina bereyek din a şer bû di navbera her du welatan de, bo vê mebestê jî bi hilsengandina sînorên Hewraman û Ciwanro û girîngya melbenda Şarezûr û Helebçê, di guhertina balansa hêzan bo aliyê xwe de, di sipêdeya roja 24'ê Reşemeya 1366'an de, di çend eniyan êrîşeke berbilav bo ser bajar û bajarokên Helebçê û Hewraman û melbenda Şarezûrê bi mebesta hewkarî û berevanîkirin ji bereya kurdistanî di wan eniyan de dest pêkir.

_ li Hewramanê ji bilindahiyên Deretifê, Pervînê, Hawar û bilindahiyên gundê Gakoje
_ ji rêya Merîvanê ve, ji bilindahiya çiyayê TeTe û gundên Hanegermele û bajarokê Biyare
_ Li ser bilindahiya gundê Ehmedawa û berbiniya çiyaya Sûrên û....
_ Di bereya Ciwanro û Bayinganê, ji gundên Sazan û Boyên û bilindahiyên Megir û Balambo û Şinriwê de
_ Di bereya Qela Şemêran û rûbarê Sîrwan û Îmamê Zamin ve

Ew êrîşe bi qasekê berfireh bû ku karî di demek kurt de tewahiya melbenda Şarezûr û Hewramanê bi xwe ve bigre, û agirê şer hemû herêm girt.

Di vê êrişê de serbarê vê ku ertêşa Îraqê û hêza Esmanî tewaya hewla xwe da ku pêşiya vê êrîşê bigrin û bişikînin, lê bi çend sedeman nekarîn serkevtî bin. Niha em dikarin basa du sedemên girîng bikin. Peywendiya beşek ji fermandên ewlehiya ertêşa Êraqê di gel opozisyona Erebî a Îraqê û peywendiyên çakdarê kurd digel hêzên bereya kurdistanî. Komara Îslamî ku di eniyên başûr û navîn de di hember hêzên ertêşa Êraqê de bêçare mabû û herweha hêza esmanî ya Îraqê bi awayek berdewam bajarên Îranê topbaran dikirin û hêza esmaniya Îranê taqet û şiyana berxwedanek herî kêm nebûn, ketin hizra ava kirina eniyek din ya şer û herweha rêxistina şerê navçeyî di hember hêzên Îraqê de û bo vê armancê jî, bi helsengandina rewşa coxrafiyayî û nîzamiya herêmê ew de girîngiyek zaf hebû bixin bin kontrola xwe de, û refên ertêşa Îraqê têk bişikênin, rewşeke han ku bo hêzên ertêşa Êraqê nedihate tehemul kirin û tirsa pêşveçûna wan ji bo bajarên din ên kurdistana Îraqê hebû, ji nişkêve û bi avayek nemirovane di êvariya roja 25'ê Reşemeya 1366'an de, hêza esmanî ya Îraqê bajarê Helebçê şîmyabaran kir û gelek bi bê rehmî cihên ku xelkê medenî têde akincî bûn, kire armanc, û pitir ji 5000 kes jin û zarok û pîr û ciwanên wî bajarî şehîd kirin û cinayetek wusa afirandin ku di dîroka mirovahiyê de meger Naziya di hember cihûyan de kiribe. Hêzên Komara Îslamî û ertêşa Îranê jî bi şêwazek din û xiraptir ji ertêşa Îraqê berbûn can û malê xelkê lêqewimî û çarenivîsa van ji şîmyabaranê taltir kirin û bi sedan xortên vê melbendê kirin qurbaniya siyasetên dije mirovî yên xwe.

**Kurdistan: Di vê êrîşê de wan çi pîlanek bi dijî PDKÎ hebûn? çawan bu ku serbarê şîmyabarana rejîma Be's û herweha topbaran kirina Komara Îslamî, ev hêze derbaz bû?**

Di hilbijartina vê bereyê di şer de, xalek serekî û armancek girîng ya Komara Îslamî ev bû ku bi hisaba xwe bikare derbek giran li hêzên PDKÎ melbend hilbijartin. Hekî bi kurtî bas ji armancên vê şerî bikin, ew armanc pêk hatibûn ji:

1) Avakirina eniyek ji şer û paşvekêşana hêzên ertêşa Îraqê ji aliyê başûr bo kurdistanê û veguhertina balansa hêzan bi qazanca hêzên erteşa Îranê.

2) dagîrkirina bendava Derbendîxan û qetandina peywendiya hêzên ertêşa Îraqê ji fermandehiya nawendê û pêşvêçûn ber bi bilindahiyên çiyayê Qeredaxê û xwe nêzîkkirin bi armanca lêdana derbên mezin li bîrên petrola Kerkûkê.

3) Herweha armancek din ku nehatibû ragehandin, azadkirina bi nav beşek ji axa kurdistanê û ragehandina bedîlekê weke hikumeta xwe ji bo Îraqê û piştevanîkirin ji opozisyona Îraqê bi mebesta herifandina hikumeta Be's.

Di rojên destpêka şer de ku hêzên Komara Îslamî bi piştevaniya hêzên Bereya Kurdistanî karîn dest bi ser bajarê Helebçe de bigirin û melbenda Şarezûr û pira Zelm ku di warê leşkerî bide, eva jî vedigere ser vê yekê ku PDKÎ di melbenda Hewraman û Ciwanroyê de hêzek çalak û ektîv bû, binke û baregayek rêkûpêk ava kiribûn û di rastî de deshilata îdarî ya Newsûd û gundên vê beşa Hewramanê bi destve girtibû. Qutabxane bo xwendina bi zimanê kurdî ava kiribû û şora bo gundên vê beşa Hewramanê diyarî kiribûn û gelek pêngavên din ên binirx avêtibûn ku bandor xistibû ser hemû dost û dilsozên gelê kurd û nûçegehanên biyanî. Bi kurtî sîmayek pêşketî ji bizava azadîxaziya kurd bi rêberiya Hizba Demokrat bû.

Hewdem digel rewşa ku hêzên PDKÎ têde bûn, Komara Îslamî bi dehan carî êrîş anî ser hêza Şaho a PDKÎ û hemû caran êrîşa vê têk dişkest û piştî bi kuştinê dana hijmarek ji hêzên xwe bi serşorî ve paşve vedikişiya. Seba vê rewşê û li berçav girtina pêgeya PDKÎ û şiyana berxwedanê di hember hêzên xwe de, di şerê Helebçê jî de yek ji wan armancan ev bû ku evê herêmê dagîr bike û hêzên PDKÎ ber bi zererên canî ve bibe.

Eva bû ku di despêka şer de, di sipêdeya roja 24'ê Reşemeya 1366'an de, hêzeke zaf êrîş kire ser binkeyên PDKÎ û çeperên pêşmergeyên hêza Şaho û hêzên Cinûba kurdistanê yên PDKÎ ku di vê, herêmê de akincî bûn, û bi awayek berdewam topxaneya Komara Îslamî çeperên pêşmerge û gundên herêma Newsûdê xistibûn nava agir de.

Di vê êrîşê de herwek çavnihêrî dihat kirin,hêza pêşmerge yên PDKÎ bi piştevaniya hêza bergirî ku ji xelkê kurd perwer û niştimanperwer yê vê herêmê pêk hatibû, êrîşên Komara Îslamî di hemû eniyên şer de şikandin û di vê berxwedanê de hêzeke zaf ya rejîmê hate kuştin û di hember cangorîtî û fîdakariya pêşmergeyên Hizba Demokrat de xwe negirtin û paşve vekişiyan.

Piştî şikandina hêzên Komara Îslamî, çend carên din êrîş kirin ser çeperên pêşmergên PDKÎ û hemû caran digel berxwedana hêzên PDKÎ berbirû dibûn û piştî hijmarek kuştî û birîndaran paşve vedikişiyan, heya di eniyên hêzên Îraqê de pêşrewî kirin û dest bi ser pira girîng a Zelm de girtin û bi tewahî rewşa şer guhertin. Di vê rewşê de hêzên PDKÎ ku pêk hatibûn ji hêza Şaho û hêza Zagros, hêza 2'yê Rêbendan û hêza Beyan, li gor bernameyek rêkûpêk xwe gehandin gundên aliyê Helebçê û piştî nirxandina rewşa eniyên şer û xwe rêkxistin ji bo egera her êrîşeke hêzên Komara Îslamî, di encam de li şeva newroza 1367'ê de, bi hereketek şoreşgêrane xwe gehandin cihê diyarî kirî û karîn bi silametî xwe derbaz bikin.

**Kurdistan: Hûn dikarin bas ji hewkarî yan jî piştevaniya hêz û aliyên kurdistanî bikin di vê pêwendiyê de?**

Xala serekî ya derbaz bûn hêzên PDKÎ, şarezayî di warê rewşa coxrafî ya herêmê de bû, cuda ji vê yekê jî, fermandehî û îradeya qahîm a hêzên PDKÎ, û peywendiya rêkûpêk digel rêberiya hizbê bû. sedema din ya vê serkevtinê peywendiya rêberî û berpirsên hizbê digel berpirsên bereya kurdistanî û fermandeyên emelyata Helebçê bûn. Di gel vê ku ji aliyê leşkirî ve tu hewkariyeke me nekirin, lê ji aliyê mirovî û hewkarî kirin bi malbatên aware re, di gel me hewkarî kirin û gelek malbatên aware û xelk veguhastin cihên aram û dûr ji şer. Bi giştî serbarê vê rewşa aloz ku di herêmê de pêk hatibû, hêzên bereya kurdistanî di gel PDKÎ û asta berpirsatiya netewî a wan cihê şanaziyê ye. Ew şer bo gelê kurd û xelkê niştimanperwer ê Helebçê karesatek mezin e û nahê ji bîr kirin, û ji bo PDKÎ ku pîlana Komara Îslam hilweşand û hêzeke mezin ji dest pîlanên Komara Îslamî rizgar kir, serkevtinek dîrokî û destanrêsiyeke mezin e.


Mihemed Nezîf Qadirî



# Bajarê Çaldiran

**Paş têkçûna rejîma paşatiyê li Îranê, gelek ji mêrxas û xweşmêrên wê herêmê li nav refên Pêşmegeyên PDKÎ de xebat kirine û zaf şehîd li rêya bidestveanîna mafên xwe yên netewî de, pêşkeşî gelê Kurd kirine. Lewra Çaldiran wek bajarekî Kurdistanî hertim nawend û wargehê azadîxwazan bûye û dê her weha jî bimîne.**



**Mecîd Cinîkanlû**

Çaldian yek ji Şaristanên parêzgha Urmiyê ye ku li bakûrê vê parêzgehê û li Rojhilatê Kurdistanê hilketî ye.

Navenda wê Şaristanê, bajarê Siyah Çişme ye. Pêka serhejmêriya sala 1385'an a Rojî 44572 kes nifûsa wê herêmê bûye. Rûberê wê Şaristanê 23.5 Kîlomêtra çargoşe ye. Şaristana Çaldiranê xwediyê sê Bexş bi navên: Deştek, Awacix a bakûr, Awacix a başûr û 4 dêhistanan bi navên: Navendî, Bebecik, Çaldirana bakûr û çaldirana başûre.

Çiyayên şaristana Çaldiran li rastî de her doma çiyayên Zagros e. Ev çiyayên serkeş sînorê navbera bakûr û rojhilatê kurdistanê pêk tînin. Herêma çaldiranê li hemû aliyekê ve bi çiyayên bilind hatîye dorpêç kirin. Li çiyayên herî bilind yê herêmê em dikarîn îşare bi: Çîyayê Qanlî, Çiyayî eşnegel, Şêx silo, Pence selîm, doştan, Yekmal û Şah Bendlo bikin. Li wan çiyayên serkeş gelek giyayên cûr bi cûr li demsala buhar û havînê de şîn dibin û seba wan giyayan li herêmên din yên Kurdistan û Îranê xelkekî zaf bo herêmê tê û mifahê ji wan giyayên ku piranîya wan dermanî ne, werdigrin.

Li herêmê de deştên Çaldiran û Kilîsa kendî hene ku rûberê wan nêzîkî 7100 hektarî dibe. Li wan deştan de genim, ceh, nok û...hwd berhem tê, ku li ava çemên Qizil û Şehîd Arxî mifah tê sitandin. Her wisa her wek me berê jî got, li vê herêmê de gelek şûnwarên kevin hene û kilîsaya reş yek ji asewarên herî kevnar yên vê herêmê ye.

Xelkê herêmê piranî Kurd in, lê hin malbtên Azerî jî li herêmê de jîyanê dikin. Navdariya wî bajarî seba şerê mezin yê Çaldiranê ku li sala 1514'an a zayînî li navbera Împeratoriyên Sefewî û Osmaniyan e ku bo cara yekem kurdistan li ser du beşan hate parvekirin. Şerê han seba milmilanêyên li navbera Şa Îsmaîlê Sefewî û Sultan Miradê Osmanî qewimî û li vê herêmê bo cara yekem Kurdistan li Împeratorîya Îranê hat qetandin. Ev bûyer hêj li nava stranên Kurdên herêmê de bi başî tê dîtin.

Li çavkaniyên dîrokî de navê çaldiranê her li zemanên berê de bi vê herêmê hatiye gotin. Çaldiran yan Çaldêran peyvekî kurdî ye ku sebeb û sedema rastî ya binavkirina vê herêmê bi vî navî nahête zanîn, lê li pirtûkên wek: Ehsen el Tarîx, Ehsen el Tewarîx û...hwd ew herêm bi vî navî hatiye nivîsandin. Rêjîma Pehlewî zaf hewil da ku navê Çaldêranê li ser herêmê rake, lê seba binavkirina vê herêmê li cem xelkê, ew herêm piştî serkevtina serhildana gelên Îranê li sala 1357'an de, her bi Çaloran hat binavkirin.

Li herêmê de hêj asewarên wî şerî wek qebrên kesên ku li şer de hatin kuştin û çendîn mocesemên dîrokî li derveyî bajar û li cihê şer tên mêze kirin.

Herêma Çaldiranê seba hebûna av û seqaya sar û bilndayî wî bajarî, hertim yek ji herêmên hênik yên Kurdistan û Îranê bûye, û li dema havînê xelkekî zaf li seranserê herêmê serdana wî bajarî dikin.

Kurdên herêmê piranî bi karê ajeldarî û werzêriyê mijûl in û piraniya herêmê li dest kurdan de ye. Kurd li vê herêmê de bi salane ku jiyanê dikin û di gel hin kêm netewên dinê wek Azerî û Ermeniyan xwediyê pêwendiyekî baş in.

Deshilatdarên rejîma Îranê hertim hewil didin ku li herêmê de li navbera Kurd û Azeriyan kêşe û pirsgirêkan biafirînin, lê hest bi berpirsatiya wan du netewan heya îro nekrîne vê bihevra jiyanê têk bidin. Tê zanîn ku li serdemê Komara kurdistanê li sala 1324'an a Rojî de, li Mehabadê zaf li Serok Eşîrên kurd yên wê herêmê li damezirandina Komara kurdistanê de pişkdarî kirine û wek Pêşmerge li Komarê de xebatekî Kurdane meşandine. Li serhildana Agirî de bi rêberiya Îhsan Nûrî û hewalên wî kurdên Çalddiranê gelekî alîkariya serhildanê kirine û Xalid Axayê Celalî yek ji kesên herî diyar di warê alîgiriya wê serhildanê bûye.

Her seba vê alîkariyê Kurdên vê herêmê ji aliyê firokeyên dewleta Turk ve ketine ber êrîşan û mal û halê wan hatiye topbaran kirin, û Kurd li herêmê neçar bi koçberîyê bûne.

Paş têkçûna rejîma paşatiyê li Îranê, gelek ji mêrxas û xweşmêrên wê herêmê li nav refên Pêşmegeyên PDKÎ de xebat kirine û zaf şehîd li rêya bidestveanîna mafên xwe yên netewî de, pêşkeşî gelê Kurd kirine.

Lewra Çaldiran wek bajarekî Kurdistanî hertim nawend û wargehê azadîxwazan bûye û dê her weha jî bimîne.





Barak Obama serkomarê DYA'ê:
**" deriyê dîplomasiyê bona çareserkirina programa navikî a rejîma Îranê nêzîkî daxistinê dibe. Jiber ku rejîma Îranê heya niha di cihê çareseriyê, riya xapandin û zêde axavtinan girtiye pêş. Civaka navnetewî tehrîm bi ser Îranê de sepandin û Amerîkayê jî hin vebijêrk danîn pêşiya Îranê da ku amade be bona çareseriya pirsa navikî pêngavan hilgire. Lewra êdî deriyê dîplomasiyê di halê daxistinê de ye".**



Mesûd Barzanî serokê Herêma Kurdistanê:

**" Em bi tu awayî amade nabin ku Tariq Haşimî radestî Bexdayê bikin, ji ber ku ji aliyekê ve buhayên exlaqî ên neteweya Kurd wê îznê nade me, û ji aliyekî din ve em ji wan tometên ku Bexda bi ser Tariq Haşimî de disepîne, xatircem nînin. Me pêşniyar jî bi Bexdayê kiriye ku di konferansa aştiya netewî de wê kêşeyê çareser bikin".**

Polîsê Hind:
**"Pêwendiyek rohn û zelal di navbera teqînên li Hind û Taylendê de hene, û Înterpol wê ji bo her sê kesên Îranî ku derheq wan teqînên li Hindê de gumanbar in, wê biryara destbiserkirinê bide. Kesê bi nave Hûşeng Efşarê Îranê jî ew kese ye ku pêwendî tevî yek ji girtiyên li Taylendê derheq teqîna li Bankokê de ye".**







Elî Debax, berdevkê fermî ê dewleta Îraqê:

**" Bexdayê bi Dewleta Îranê ragehandiye ku ew îznê nadne Îranê ku ji xak û esmanê Îraqê bona veguhastina barên çek û teqemeniyan bo rejîma Sûriyê mifahê wergire, û heya niha jî tu welatekê ji riya esmanî û erdî a Îraqêbarên çek û teqemeniyan neşandiye Sûriyê".**

**Nasir Muradî, Şêvirmendê Komîteya Nawendî a PDKÎ pirsa teqîna li Hindê û daxuyaniya polîsê Hindûstanê weha şirove dike:**

"Di rastî de rejîma Îranê çi wek duşm, çi wek daxwazî yan piratîk di hewla jinavbirina Îsraîlê li ser xerîteya erdnîgariyê de ye, û ew hewla wan êdî niha bûye beşek ji siyaseta derekî a rejîma Îranê. Lewra alozî û nakokiya di navbera her du welatan de qonax bi qonax çûye pêş ku niha wek şerê sar xwe nîşan dide, û ber bi şereke ne ragehandî ve diçe. Pirsek din di vî warî de pirsa navikî ya Îranê ye ku girêdayî bi hinek kêşeyên navxweyî û derekî ên rejîmê ne û bûye sedema vê ku li asta cîhanî de bere yan dijkiryarek bi hêz li hember de pêk bê, ji ber ku destpêregihîştina Îranê bi çeka navikî dîsan girêdayî bi ewlehiya navdewletî û herêmî û li servey hemiyan girêdayî ewlehiya Îsraîlê ye, lewra Îran jî dixwaze wan zextên li ser xwe kêm bike û bi wan teqînan bala bîrûraya giştî bo bikêşe bo aliyê wan bûyeran, bi bê vê yekê ku devsê ji xwe bi cih bihêle, lê em dibînin ku weha jî nine ku devs ji terorê bi cih nemîne".

**Nasir Moradî herweha axavtina Elî Debax weha şirove dike:**
" Di rastî de rejîma Îranê bi tewaya hêza xwe ya madî û leşkerî piştevaniya rejîma Beşar Esed dike bona vê ku pêşiya rûxana vê rejîmê bigre. Yek ji sedemên wan hewlên Îranê



pêwendî bi hewkêşeyên navbera Îran û Îsraîlê ve heye. Ji aliyek din ve hiloşîna rejîma Beşar Esed pêwendî heye bi pêkhatina valahiya siyasî ya deshilatê di herêmê de, û kurtbûna destê rejîma Îranê di warê karên terorîstî de. Herweha bi sedema wan hemû kêşeyên ku bi rojawayiyan re heye êdî cihê bêhnvedanê jêre nemaye, ji bilî Sûriyê ku carna dikare li wir bi rehetî bêhnekê vede. Di rastî de Sûriye eniya herî pêş ya Îranê bi dijî Amerîka û Îsraîlê ye. Lewra Sûriye bo Îranê gellek giring e, û Îraq jî agehdarê vê yekê û alîkariyê rejîma Îranê bi Sûriyê ye, û li jêr zexta welatên Erebî û rojawayiyan de neçare ku biryarek weha bide".



**Dara Natiq, Şêvirmendê Komîteya Nawendî a PDKÎ axavtina Mesûd Barzanî weha şirove dike:**

"Bêşik dosiyeya desthebûna Tariq Haşimî di karên terorîstî de ji aliyê Dezgeha Dadê a wî welatî ve, ew jî rast di dema seferek dîplomasî û civînên taybet tevî rayedarên herêma Kurdistanê de, vedigere ser kêşe û rikeberêyên wan çend salên dawî yên di navbera aliyên Sunî û Şîe yên Îraqî, û biryarên tekrewane yên Nûrî Malikî ji bo hezif kirina hemberên xwe û pêkanîna hikûmetek zorîne a Şîe, di bin bandora rejîma terorîstperwer a Komara Îslamî de.

Lewma helwêstên birêz Barzanî di vê derheqê de, pir zelal e. Gelê Kurd rêz ji yasa û serweriya welêt digre û berevaniyê ji mafê berheq yê tev pêkhateyên wî welatî dike û nakeve bin bandora tu pîlanek bê belge û mebesdar de.

Li gor helwêsta birêz Barzanî divêt ew dosiye di çarçoveya yasa û bi avayek demokratîk û di dadgehek xweser de were çareser kirin. Gelê Kurd gelekî aştîxwaz e û herdem di pêxema aştî û tenahî û bi hevre jiyana gelan de dixebite".

**Dara Natiq axavtina Barak Obama jî weha şirove kir:**

"Lê di axavtna Obama de dixûye ku, êdî Komara Îslamî a Îranê, serbarê tev zext û givaşên navneteweyî û dorpêçên berfireh yên civaka navneteweyî û rêçareyên dîplomatîk derheq bi piroseya navokî a wî wilatî, amade nine ku bi tu awayekî bersiva raya giştî a cîhanê bide û pabend be bi yasa û pirensîpên cîhanî. Ceribîna çend salên derbasbûyî heya niha jî didin xuya kirin ku Komara Îslamî mana xwe di destpêragehîştin bi çekên etomî de dibîne. Lewma teslîmê hez û xwastên cîhana derve û nemaze Amrîkayê nabe.

Gotina serkomarê Amrîkayê derheq bi êrîşa nîzamî bo ser Îranê jî tê vê wateyê ku raya giştî a cîhana derve ya Îrana xwedî çekên etomî qebûl nake û bi metirsiyek mezin bo ser tenahya cîhanê dizane, û lewma li egera berdewambûna Îranê li ser piroseya etomî, ew yek dê bikeve warê piraktîk de".

# Agirî

**Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye**
**Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com



Agirî
Baykot!

# Hemû rojên we newroz, newroza we jî pîroz


Alboma wêneyên newroza 1391 a rojî Koye, binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ









